

## Daxuyaniya 16’emîn pilînoma Komîteya Navendî a PDKÎ

»»»» R:3




## Peyama pîrozbahiyê ya birêz Mistefa Hicrî bo rêzdar Ozçelîk





»»»» R:2

*Bidestveanîna mafên netewî yên gelê kurd di çarçoveya Îraneke demokratîk û federal de*

# Agirî

*Duheftînameyek Siayasî-Giştî Ye, PDK Îranê diweşîne www.kurdistanmedia.com/kurdî*
*www.agirimedia.org Hejmar (301) 05-05-2017 Buha (1000) Tûmen*

## Rostem Cehangîrî :

## Hewce ye ku xortên Îlam û Kirmaşanê jî tevlî xebatê bibin, û bi awayekî çalakane rola xwe bilîzin...

»»»» R:5



## Bazineya baykota hilbijartinan tengtir dibe




**Serbarê piropagende û hewlên çirr û berdewam ên seranên Komara Îslamî derheq germkirina hindî zêdetir ya tendûra hilbijartinan ku biryar e 29’ê Banemerê bi rê ve here, rêjeya wan aliyên ku vê şanogeriyê baykot dikin jî, roj bi rojê zêde û zêdetir dibe.**

**Roja 7’ê Banemerê (27’ê Nîsanê), şeş aliyên siyasî ên Rojhilata Kurdistanê, di daxuyaniyeke hevpar de hilbijartinên serkomariyê ya rejîma Îranê baykot kirin. Piştî belavbûna vê daxuyaniya hevpar, ji bilî çalakên siyasî ên navxwe ên Rojhilata Kurdistanê û ên derveyî welat, çend aliyên din jî tevlî karwanê baykotkirinê bûn, û roja 15’ê Banemerê komek ji mamaostayên xwendingehên Kirmaşanê bi belavkirina daxuyaniyekê ragehandin, ku ew beşdariyê di hilbijartinê de nakin.**

**Xeynî aliyên Kurdistanî, roja 10’ê Banemerê jî beşek ji hozên navdar ên Belûçistanê ku beşek ji wan pêk tên ji: Berahûyî, Mihemed Hesenî, Elem Xan û Xodanûrxan, wekî aliyên siyasî ên Kurdistanê, tehrîma hilbijartinan bi helwesta xwe ya fermî ragehandin, û tevî baykota bi nav hilbijartinan di Îranê de ragehandin ku em xelkê Belûç, çi demekê li şanoya pêkenok ya bi nav hilbijartinan de beşdariyê nakin û xwîna şehîdên xwe ji bîr nakin. Ji aliyekî din ve Kongireya Neteweyên Îrana Federal di daxuyaniyekê de rû li gelên belengaz ên Îranê, hilbijartinên serkomariyê û ên gund û bajaran baykot dikin.**

**Herwisa di vê çarçoveyê de girûpa “Itihad berayê dêmokrasî der Îranî” (Yekîtî bo demokrasiya di Îranê de), roja Înê 15’ê Banemera sala 1396’an di daxuyaniyekê de, hilbijartinên serkomariya rejîma Îranê wekî şano bi nav kir, û daxwaz ji hêzên demokrasîxwaz û çalakên siyasî kir, ku beşdariyê di hilbijartinan de nekin.**

## Daxuyaniya hevpar ya şeş aliyên Kurdistanî bo baykota hilbijartinên rejîma Îranê

»»»» R:4

**Daxuyaniya hevpar ya şeş aliyên Kurdistanî bo baykota hilbijartinên r**



**Şeş aliyên Kurdistana Rojhilat di daxuyaniyeke hevpar de, hilbijartinên serkomariyê ên rejîma Îranê baykot kirin.**

Deqa daxuyaniyê:

Daxuyaniya hevpar

Civatên têkoşer ên xelkê Kurdistanê!

Komara Îslamiya Îranê roja 29’ê Banemerê hilbijartina serkomariyê, û şêvrên gund û bajaran bi rê ve dibe. Ya ku bi navê hilbijartinê di vê rojê de, li jêr deshilata Komara Îslamî de bi rê ve diçe, li gora çi pêwereke demokratîk û îroyî nikare navê hilbijartinê li ser bihê danîn.

Di rewşekê de, ku partiyên siyasî ên neyarê rejîmê hatine qedexekirin, û eşkerekirina boçûnên azad jî li tewaya Îranê de tawan e, û civatên xelkê Kurdistanê ji mafên xwe yên herî destpêkî ên neteweyî û mirovî hatine bêparkirin, ew bi nav hilbijartin tê wateya bêmafkirina xelkê Kurdistanê di diyarîkirina qedera

xwe de, û yek ji sebebkarên dirêjkirina temenê [...] dayî û serkutkar e di Îranê de.

Di vê derheqê de em daxwazê ji hemû xelkê Ku[...] dijkiryareke bibawer di hemberî vê hemû bêma[...] Banemerê de, beşdariyê nekin.

Bi beşdarînekirina xwe di vê şanogeriyê de, pey[...] yekdengiya xwe, di hemberî rejîmekê de, ku ma[...] dike, bigehînin cîhanê.

Baykotkirina yekdeng ya vê bi nav hilbijartinê [...] pêşîgirtina ji dasepandina her cure zextekê, bi b[...]

Em daxwazê ji hemû çalakên biyavê xebata civ[...] û alî û kesayetiyên siyasî dikin, ku di pêxema b[...] ya azadîxwaziyê, gellek çalakane pêşwaziyê bi[...] yekdengiyê bihêz bikin.

Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê

Komeleya Zehmetkêşên Kurdistanê

Komeleya Şoreşger a Zehmetkêşên Kurdistana [...]

Saziya Xebat a Kurdistana Îranê

Komele (Rêkxirawa Kurdistanî ya Hizba Kom[...]

Hevalên pêşîn

07.02.1396
27.04.2017

## Armanca me

»»»» R:2




## Jin û Berxwedan



»»»» R:8

## Sergotar

# Armanca me

Kerîm Perwîzî


کوردستان

آمانجی ایمه

ئێمه که به دڵمانا نه‌ده‌هات خاوه‌نی چاپخانه و ئینتشارات بین؛ ئه‌وا به یارمه‌تی خودا نامه‌ی کوردستان داندرا و هه‌وه‌ڵ ژماره‌ی بڵاو کراوه، ئه‌م نامه‌یه که له لایه‌ن حزبی دێموکراتی کورستانه‌وه بڵاو ده‌بێته‌وه ده‌یه‌وێ قه‌ڵایه‌کی ئاسنین له ئیتحاد و برایه‌ی بێنێته به‌رهه‌م که بناغه‌که‌ی به زانست و هونه‌ر و له‌شساغی داندرابێ و بتوانێ ده‌گه‌ڵ سێڵاوی دوبه‌ره‌کی و بێدینی و هه‌موو جۆره ره‌وشتێک که بۆ سه‌ربه‌ستی زه‌ره‌ر بێت به‌ربه‌ره‌کانێ بکا، هیوامان وایه ئه‌م قه‌ڵایه‌ی که خه‌ریکین قایمی بکه‌ین؛ وه‌ها قایم و به‌هێز بێت که هیچ هێزێک نه‌توانێ به‌ربه‌ره‌کانی له‌گه‌ڵا بکا. سید محمد حمیدی

“Em ku dilê me nedihat, em bibin xwediyê çapxanê û întişaratê, eva bi yarmetiya Xwedê, nameya Kurdistanê hate danîn, û yekem hejmara wê hate belav kirin, ew nameya ji aliyê Hizba Demokrata Kurdistanê ve belav dibe, û dixwaze ku kelha hesinîn ji îtihad û biratiyê berhem bîne, ku bingeha wê li ser zanist û huner û leşsaxiyê hatibe danîn, û bikare digel lehiya duberekiyê û her cure exlaqekê ku zirarê bigehîne serbestiyê,rikberiyê bike, û hêviya me ew e ku ew kelha ku em dixwazin qahîm bikin, wisa bihêz be, ku tu hêzek nekare berêkaniyê digel de bike”.

Seyîd Mihemed Hemîdî

Eva sergotara hejmara yekem ya rojnameya Kurdistanê ye ku roja 20.10.1324 (11.01.1946)’an, li Mehabadê hate belavkirin.

Ew kelha ku Hizba Ddemokrat ava kir, û bingeha wê danî, 70 sal e ku li

»»» R:4

## Birêz Mistefa Hicrî serkreterê giştî ê PDKÎ peyameke pîrozbahiyê ji Mistefa Ozçelîk re şand

**Kurdistanmedia: Bi sedema lidarxistina yekem kongireya Partiya Azadiya Kurdistanê, birêz Mistefa Hicrî serkreterê giştî ê PDKÎ peyameke pîrozbahiyê ji Mistefa Ozçelîk re şand.**

**Deqa vê peyamê weha ye:**

Berêz Mustefa Ozçelik serokê Partiya Azadiya Kurdistanê !

Bi sedema darxistina yekemîn kongireya we, ser navê Hizba Demokrat a Kurdistana Îranê, pîrozbahiyên germe xwe pêşkêşî cenabê we û hemû endamên rêzdare kongirê dikin û heviya serkewtinê bo kar û xebatên partiya we dixwazin.

Em piştrast û elxayînin ku partiya we her wekî ji dema avabûna xwewe heta niha di pêxema doza netewiye gelê Kurd li Bakûrê Kurdistanê xebat kirye, eynî dem da wekî partiyek dost û hevxebat bi Hizba Demokrata Kurdistana Îranê û tevgera gelê kurd li Rojhelate Kurdistanêra hewsozî hebûye û her tim nirx û sîmbolên netewiye vê beşa Kurdistanê xwera esas girtine û bi xwedî derketin û elaqedar bûna xwe, pêra hevkar bûye û yê niha vêda jî eynî wisa berdewam be.

Hevalên hêja kongireya we di demekê da tê darxistin ku Rojhelata Navîn û welatên Kurd akincî,di nav kelejanek mezindane û tê texmîn kirin ku guhertinê bilez û micid rêdane.di demek ha hestiyar û tevlîheviya hewkêşeyên siyasî da, hewcehiya yekrêzî û hevkariya navbera hêz û partiyên kurdistanê di pêxema Azadiya gelê kurd û parastna berjewendiya netewî,ji hemû demekê zêdetir wek pirensîp û berpirsayetiyek welatparêzî dikeve ser milê hemû aliyekê.

Di bin ronahiya wan guhertinan û eynî dem da pêşkewtin û yekrêziya tevgera rizgarîxwaziya gelê kurd li hemû beşên kurdistanê de, em li her demekê zêdetir bi serkewtinê hêvîdarin.

Carek din hêviya serkevtinê bo kongireyawe daxwaz dikin.

Tevî hurmetên xasmanî

**Mistefa Hicrî**

**Sekretêrê giştiye Hizba demokrata Kurdistan a Îranê**

**04/05/2017**

## Dayîka şehîdekî Hizba Demokrat koça dawiyê kir

**Dayîka şehîdekî Hizba Demokrat a Kurdistana Îranê bi navê “Fatime Rehmanî” li Kamyaranê koça dawiyê kir.**




Li gorî nûçeya gehiştî destê malpera Kurdistanmedia yê, roja Înê 20’ê Nîsana 2017’an “Fatime Rehmanî” dayîka şehîd “Mehmûd Baz’efken” li gundê “Zêwiye” ya ser bi bajarê Kamyaranê koça dawiyê kir.

Navhatî mirovekî şoreşvan û xwedî bawerî bû, û berdewam şanazî dikir ku dayîka şehîdekî Hizb Demokrat a Kurdistana Îranê ye.

Termê “Fatime Rehmanî” di nava aporaya xelkê de bi axa pîroz a nîştiman hate sipartin.

Şehîd “Mehmûd Baz’efken” sala 1961’an a Zayînî li gundê “Zêwiye” a ser bi bajarê Kamyaranê hatiye dinê û piştî hatina nava PDKÎ de, berwarê 31’ê Gelawêj a sala 1362’an a Rojî, li derdora “Serşêlane” tê şehîdkirin û li gundê “Mêrgesar” bi axa pîroz a nîştiman hatiye sipartin.

PDKÎ sersaxiyê dibêje malbat û xizm û kes û karên navbirî û xwe di xem û kovana jidestçûna navbirî de bi pişikdar dizane.

## Daxuyaniya 16’emîn pilînoma Komîteya Navendî a PDKÎ



Kurdistanmedia: Deftera Siyasî a PDKÎ derheq birêveçûn û bidawîhatina 16’emîn pilînoma Komîteya Navendî daxuyaniyek belav kir.

Deqa daxuyaniyê:

Daxuyaniya Deftera Siyasî a PDKÎ derheq bidawîhatina 16’emîn pilînoma Komîteya Navendî

Komîteya Navendî ya PDKÎ hilbijartiya kongireya pazdehem ya PDKÎ, 16’emîn pilînoma xwe bi beşdariya endamên serekî û cihgirên Komîteya Navendî û nûnerên endamên rêberatiya PDKÎ li derveyî welat bi rê ve bir.

Pilînomê demjimêr 9’ê sibehiya roja Şemiyê 9’ê Banemerê hevberî 29’ê Nîsan 2017’an, bi ragirtina deqeyekê bêdengî bo rêzgirtina ji riha pak ya şehîdan dest pê kir.
Di destpêka karên pilînomê de, sekreterê giştî ê PDKÎ Mistefa Hicrî basek li ser destûra karê pilînomê ku pêştir bi agehdariya beşdarên pilînomê gihîştibû, pêşkêş kir, û piştî pesendkirina destûra karê pilînomê Xalên cihgirtî li destûra kar de ketin ber bas, û guherîna boçûnan li ser hate kirin.

Beşa yekem ya mijarên pilînomê bas li ser pirojeyekê bû, ku birêz sekreterê giştî ê PDKÎ derheq pêwîstiya guherînkariyan di pêkhateya hizbê de, pêştir bo endamên rêbertiyê hatibû şandibû, û di vê derheqê de piraniya beşdaran, tevî pêdagiriya li ser pêkhatina guherînkariyan li pêkhateya hizbê de bûçûnên xwe eşkere kirin, û piştî bûçûnên beşdaran, û kobenda basan, bi pêwîst hate zanîn, ku bo rawêja zêdetir di vê pêxemê de, boçûnên dilsojan, bi taybetî endamên PDKÎ li ser guherîna pêkhateya hizbê, û her terheke din di vê derheqê de, ku bête berdest, bê wergirtin, û heyetek ku ji çend endamên komîteya Navendî pêk hatibû, piştî behskirina li ser wan boçûnan û pêşniyaran, û terhên (gelaleyên) gihîştî, di heyameke diyarîkirî de, terhekê bo guherîna pêkhateya hizbê, bi marmanca pêşkêşkirina bi kongireya 16’ê a PDKÎ bi pesenda Komîteya Navendî bigehîne.

Di beşeke din ya karê pilînomê de, berpirsê komîteya amadekar ya kongirê raporek li ser karûbarên pêwendîdar bi kongireya 16 a hizbê bi taybetî çawaniya birêveçûna konferansan, pêşkêşî beşdarên pilînomê kir, û rêberatiya hizbê ji çawaniya bi encamgihîştina karên kongirê agehdar kir, û pilînomê piştî baskirina ji hinek kêmasiyên di vê derheqê de, rapora komîteya amadekar pesend kir.

Mijareke din ya destûra karê pilînomê pêk hatibû ji helwesta Deftera Siyasî ya PDKÎ derheq hilbijartinên 29’ê Banemera sala 1396’an, di Komara Îslamiya Îranê de, ku li gora vê biryarê, PDKÎ û pênc hizb û aliyên siyasî ên din ên Kurdistana Rojhilat, piştî nirxandin û guherîna boçûnan û bêmifahzanîna van hilbijartinan, ew hilbijartin baykot kirin.

Beşdarên pilînomê tevî îşarekirina bi vê rastiyê ku ew şanogeriya bi nav hilbijartinê, ji aliyê dezgehên serkutkar ên rejîmê ve bi awayekî têne rêkxistin, ku berbijêrên dilxwaz ên rejîmê ji sinduqên dengdanê bêne derxistin, û di kiryarê de, dibin nûnerê rejîmê, û di çarçoveya berjewendiya rejîmê de, pêngavan davêjin, hevdeng digel û hizb û aliyên din ên dijberî rejîmê, biryara baykotkirina van bi nav hilbijartinan pesend kir.

Beşeke din ya karê pilînomê basek bû li ser Rasanê, û pêwîstiya domandina vê şêweya xebata çiya û bajar. Beşdarên pilînomê bi baskirina li ser girîngiya rasanê, û hêvîbexşîna bi civatên xelkê Kurdistanê, û jêhelbirina moral û hogiriya kadr û pêşmerge û endamên PDKÎ li jêr ronahiya rasanê, berdewamî û domandina vê şêweya xebatê, û berfirehkirina wê, bi hewce zanîn, û wekî erkeke herî girîng ya PDKÎ hate danîn, û bo vê mebestê jî, bi baskirina li ser hemû aliyên wê mijarê, li ser komeke bername û rêkarên taybet bona hindî zêdetir baştir birêveçûna rasanê guherîna bîr û rayan hate kirin, û raspardeyên pêwîst bi organên pêwendîdar hatne dan.

Pilînomê bi berçavgirtina girîngiya rasanê, û baldana bi vê rêkarê, û wan bernameyên ku pilînomê di vê derheqê de destnîşan kirin, biryar da ku pêkanîna kongireya 16’ê di pêxema cîbicîkirina erkên pêwendîdar bi rasanê de, bo heyamekê paş bixe.

Dawî beşa karê pilînomê guhgirtin bû ji rapora heyetên hizbê, ku di heyama borî de, bo pêkanîna hevdengî û lihevnêzîkbûna hizb û aliyên siyasî ên Kurdistana Rojhilat digel van hizb û aliyên din di civînê, û guherîna boçûnan de bûn.
Pilînomê tevî nirxandina encama her rûniştinekê, doma van hewlan di pêxema hevdengiyê de bi hewce da zanîn, û di vê derheqê de, raspardeyên xwe dane Deftera Siyasî.

16’emîn pilînoma Komîteya Navendî piştî sê rojan kar û bas û guherîna boçûnan demjimêr 1’ê nîvero ya roja Duşemiyê 11’ê Banemerê (1’ê Gulanê), dawî bi karên xwe anî.

PDKÎ
Deftrea Siyasî
12.02.1396
02.05.2017

## Dayîka şehîdekî Hizba Demokrat li Bokanê koça dawiyê kir



**Xedîce Mihemed Beyg, dayîka şehîdekî Hizba Demokrat a Kurdistana Îranê li bajarê “Bokanê” koça dawiyê kir.**

Li gorî nûçeya gehiştî destê malpera Kurdistanmedia yê, roja Pêncşemî berwarê 27’ê Nîsana 2017’an “Xedîce Mihemed Beyg”, dayîka şehîd “Xalid Pijgol” bi sedema nesaxiyê koça dawiyê kir.

Navhatî jineke disoz û wefadar bi rêbaza kurê xwe yê şehîd bû, lewra hertim cihê baweriya xelkê derdorê bû.

Şehîd “Xalid Pijgol” sala 1963’an a Zayînî li gundê “Golê” ya ser bi bajarê Bokanê hatiye dinê û yek ji pêşmergeyên herî leheng yê PDKÎ bû di hêza “Beyan” de, ku mixabin berwarê 28’ê Rêbendana sala 1361’an a Rojî, li cihekî binavê “Girdî Qebran” bi destê kirêgirtiyên rejîma Îslamî ya Îranê hate şehîdkirin.

Hizba Demokrata Kurdustan a Îranê sersaxiyê dibêje malbat û xizm û kesûkarên navbirî û xwe di xem û kovana jidestçûna navbirî de bi pişikdar dizane.

## Daxuyaniya hevpar ya şeş aliyên Kurdistanî bo baykota hilbijartinên rejîma Îranê



**Şeş aliyên Kurdistana Rojhilat di daxuyaniyeke hevpar de, hilbijartinên serkomariyê ên rejîma Îranê baykot kirin.**

Deqa daxuyaniyê:

Daxuyaniya hevpar

Civatên têkoşer ên xelkê Kurdistanê!

Komara Îslamiya Îranê roja 29’ê Banemerê hilbijartina serkomariyê, û şêvrên gund û bajaran bi rê ve dibe. Ya ku bi navê hilbijartinê di vê rojê de, li jêr deshilata Komara Îslamî de bi rê ve diçe, li gora çi pêwereke demokratîk û îroyî nikare navê hilbijartinê li ser bihê danîn.

Di rewşekê de, ku partiyên siyasî ên neyarê rejîmê hatine qedexekirin, û eşkerekirina boçûnên azad jî li tewaya Îranê de tawan e, û civatên xelkê Kurdistanê ji mafên xwe yên herî destpêkî ên neteweyî û mirovî hatine bêparkirin, ew bi nav hilbijartin tê wateya bêmafkirina xelkê Kurdistanê di diyarîkirina qedera xwe de, û yek ji sebebkarên dirêjkirina temenê Komara Îslamî û nizama serberedayî û serkutkar e di Îranê de.

Di vê derheqê de em daxwazê ji hemû xelkê Kurdistana Rojhilat dikin, ku wekî dijkiryareke bibawer di hemberî vê hemû bêmafiyê de, di hilbijartinên roja 29’ê Banemerê de, beşdariyê nekin.

Bi beşdarînekirina xwe di vê şanogeriyê de, peyameke rohn û zelal ji îrade û yekdengiya xwe, di hemberî rejîmekê de, ku mafên mirovî û rewa ên we binpê dike, bigehînin cîhanê.

Baykotkirina yekdeng ya vê bi nav hilbijartinê di heman demê de, riyek e bo pêşîgirtina ji dasepandina her cure zextekê, bi boneya hilbijartinê.

Em daxwazê ji hemû çalakên biyavê xebata civakî û medenî û têkoşerên siyasî, û alî û kesayetiyên siyasî dikin, ku di pêxema bicîhanîkirina erk û wezîfeya xwe ya azadîxwaziyê, gellek çalakane pêşwaziyê bikin ji vê bangewazê, û refên vê yekdengiyê bihêz bikin.

Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê

Komeleya Zehmetkêşên Kurdistanê

Komeleya Şoreşger a Zehmetkêşên Kurdistana Îranê

Saziya Xebat a Kurdistana Îranê

Komele (Rêkxirawa Kurdistanî ya Hizba Komonîsta Îranê)

Hevalên pêşîn

**07.02.1396**
**27.04.2017**

### »»» Doma sergotarê

ser piyan e, û ne tenê tirsa herifînê li ser nine, belku digel derbazbûna roj û meh û salan de, qahîmtir ji caran dibe kelha berxwedana ronakbîrî û hizrî û çave hişyar û tûj ê civaka Kurdistanê.

71 sal bi ser belavbûna yekem hejmara Kurdistan û 71 sal bi ser damezrandin û ragehandina Komara Kurdistanê re derbaz bûye, û ew hejmara Kurdistanê dibe hejmara 700. Di rastî de, hefsed qatên serwerî û xaneyên tomarkirina êş û azar û hezkirinên neteweyeke xebatkar, û xwedî îrade wek neteweya Kurd.

Rojnameya Kurdistanê her wekî li serxetên destpêkî ên bi pênûsa Seyîd Mihemed Husêniyê nemir de hatiye, bûye kelheke hesinîn, bo vê ku neteweyek xewnên serbestiyê tê de bibîne. Bona vê ku ew neteweya digel serdem de xwe organize bike, û ji emrazên serdem mifahê wergire, û kelhek ji yekrêzî, li ser bingeha zanist û huner û tendurustiya civakî ava bike.

Armanca rojnameya Kurdistanê

ew bû ku ziman rewan ê neteweyekê be, ku neyar dixwazin zimanê wê bihelînin. Armanc ew bûye ku pêşkevtin û zanista serdem û deskewta neteweyên din, bike zimanê neteweyî û neteweya Kurd jê aghedar bike. Arman ew bûye ku hem rêz ji hunerê bigre, û hem jî hunera Kurdistanê vegeşîne, û di vê pêxemê de, çi ji dest bihê, bixe ger. Armanc ew bû ku belavkerê exlaqeke paqij û medenî be ku civaka Kurdistanê dûr bixe ji zirarên civakî û nêzîk be ji serbestiya neteweyî û civakî.

Ewna armancên rojnameya Kurdistanê, ji destpêkê ve heya niha bi dirêjahiya 700 hejmarên vê rojnameyê û di ratsî de 700 qatên vê kelha hesinîn bûn, ku em dikarin wekî pirensîpên pirr buhagiran ên exlaq, û armanca ragehandina Kurdî bi nav bikin. Bona serhevxistina van 700 qatan, bi dirêjahiya 71 salan, hezaran nivîser û ronakbîr û kadr û pêrsonelên fenî û têkoşerên taybet bi gehandina rojanmeya Kurdistanê bi destê evîndar û ogirên wê, ji bîra pêşkevtî ya xwe mifah wergirtine, û zehmet kêşane, û êş û azar dîtine, û xwêh rijandine, û heya di pêxema van armancan de jî şehîd bûne. Kêm nînin ew kesên ku bi tawana vê ku di berîka wan de, qeteke rojnameya Kurdistan hebûye, hatine girtin û işkencekirin, û heya li jêr işkenceyan de bi detsên celladên pehlewî û Wilayeta Feqîh hatine şehîdkirin.

Bi navê Desteya Nivîskaran û kargêrên rojnameya Kurdistan, em rêz ji hemû êş û azar û tekoşîna hemû wan kesan digrin, ku di heyama 71


کوردستان

salan û 700 hejmaran de, ew kelha hesinîn parastine, û ew kelh qahîm kirine.

Em hemû têkoşerên destpêkê, û ên piştre, û ên niha ên vê kelha mezin ya Kurdistanê, bi bîr tînin. Niha jî cuda ji hejamreke kêm ji pêşmergeyên nav açepera berxwedaniyê, bi dehan kesî li hemû cihekî cîhanê, alîkarê paratsin û vegeşîna vê kelhê ne.

Destê mendî ê hemiyan em digivişînin, û em pîrozbahiya hejmara 700 ji hemû kesî, li mêjûyê û li niha dikin, ku rola wan hebûye di qahîmkirina vê kelha hesinîn de.

# Gotûbêjek digel rêzdar Rostem Cehangîrî endamê Deftera Siyasî a PDKÎ derheq rewşa siyasî û civakî a Kurdistanê



## Rostem Cehangîrî :

## Hewce ye ku xortên Îlam û Kirmaşanê jî tevlî xebatê bibin, û bi awayekî çalakane rola xwe bilîzin, û hêza xwe nîşan bidin, wê demê ye ku em dikarin bêjin şoreşa gelê Kurd giştgîr e, û ji sertaserî Rojhilata Kurdistanê ve xelk tê de beşdar e

H: Şehram Mîrzayî

H: Şehram Mîrzayî

**Dema ku em bas ji stema neteweyî dikin, eva em qala dîrokeke zêdetir ji 2500 salî û tejî ji dagîrkarî, jînosayd, asîmîlasiyon, Îsti'imar, çewsandin, dûrxistin, girtin, û jinavbirina jîngeha neteweyekê dikin, ku tevî van hemû cinayetan dîrokek tejî ji berxwedan, û şoreşê jê re maye, û bona bidestxistina jiyaneke mirovî û serweriya siyasî di nava bazineya erdnîgariya xwe de tomar kiriye. Ji vê dîroka pirr ji terajidî, di her navçeyeke kurdistanê bi bê cudahiya jeopolîtîkî û herwisa rewşa heyî, ya van navçeyan, em şahidê birêveçûna gellek pîlanên cuda ne ji bo jinavbirina neteweya me. Her di vê rastayê de, bona behskirina li ser rewşa siyasî û civakî a Kurdistanê, û şêweya birêvebirina pilanên dijî Kurd, û wekhevî û cudahiyên birêveçûna van pilanan li du beşên gellek hestiyar û stratejîk ên Kurdistanê ku roleke yekalîker di xebata rizgarîxwaziya gelê me de hene, digel hevalê têkoşer kak Rostem Cehangîrî endamê Deftera Siyasî a PDKÎ, me gotûbêjek pêk aniye, ku deqa vê gotûbêjê weha ye:**

**Pirsyar: Kêşeya zimanê dayîkê, û hewla hikûmeta Îranê bona jinavbirina zimanê Kurdî li Kirmaşanê û Urmiyê, metirsiya herî serekî ye li ser tevgera Kurdî. Partiyên siyasî û çalakên navxwe bona dijberiya digel vê siyaseta faşîstî çi erkeke wan heye, û dibe çi bê kirin?**

**Bersiv:** Rast e ku rejîmên yek li dû yekê, ên Îranê, berdewam çi di derbazbûyî de, û çi jî niha, hewla wan ew bûye ku şûnwarekê ji zimanê Kurdî di van du parêzgehan de nehêlin, heya çend jî karîbin, hewl dane, ku li sertaserî Kurdistanê de jî, zimanê dayîkê yê neteweya Kurd, kêmreng û asîmîle bikin, û şûnwarên wê bişon. Lê digel hemû van hewlan jî, heya niha jî nekariye ku di vê pilana xwe de serkevtî be.

Nahê kirin, em vê yekê bo bandora hizbên Kurdî vegerînin û bêjin ku ew bûne sedem da ku rejîm di vî karê xwe de serkevtî nebe. Belkû bi baweriya min, bihêzbûna hesta neteweyî ya neteweya Kurd, û şanazîkirina Kurdan bi kinc û kultura dewlemend a xwe, serbarê serkuta bêrehmane ya şoreşên wê, û girtin û îdama xortên wê, sedemek girîng bûye, bona têkşikandina pilana paktawa zimanî û ferhengî, ya vê neteweya mezin. Kurdên Xurasanê belgeyeke zindî û bihêz û haşahilnegirin, bo vê yekê, serbarê vê ku bi sedan salî ye ku ji wargehê bav û kalên xwe hatine dûrxistin, niha jî dibînin ku ziman û kultura xwe, û ji hemiyê zêdetir hesta xwe ya eteweyî parastine. Di vir de ye ku em dikarin bêjin ku rejîmên faşîst ên Îranê nekarîne, di vê pilanên xwe de serkevtî bin, û hertim di hemberî xortên Kurd de bêçare bûne.



Li parêzgeha Urmiyê de jî, digel vê ku hirûjma faşîstî bo helandina neteweya Kurd, dest pê kiriye, lê Kurd berdewam xweragir û bêminet bûye. Li ser xebata xwe berdewam bûye, û hewla parastina çand û kultur û zimanê xwe daye, û hesta rizgarîxwaziya neteweyî, ne tenê her lawaz nebûye, belkû roj bi rojê di vegeşînê de ye. Her lewra reftara rejîmê di van navçeyan de, li çav parêzgehên din ên Rojhilata Kurdistanê zor çirtir û tundtir bûye.

Diyare ku partiyên Kurdî û bi taybetî PDKÎ li serdema Komara Kurdistanê de, hertim hewla xwe daye da ku ji riya nivîs û belavokan ve, û herwisa ji riya radyo û televîzyonan ve bibe deng û rengê vî xelkî, û girîngî daye ziman û kultur û çanda Kurd, û bûye astengeke bihêz li pêşberî neyarên Kurd, li raserî Kurdistanê bi giştî, û parêzgehên Urmiye, Kirmaşan, Îlam bi taybetî, ku bi ratsî bandora erênî ya xwe jî daniye.

**Pirs: Gelo hûn xalên hevbeş û cuda ên di siyasetên faşîstî ên hikûmeta Îranê de, bona jinavbirina gelê Kurd çi ji riya jînosayd û çi ji riya asîmîlasyona çandî di van du beşan de çawa dibînin?**

**Bersiv:** reftar û siyaset û gotara faşîstên Îranê, gellek dişibhe siyaseta faşîstên Tirk û Ereb li welatên wekî Tirkiyê û Îraqa serdema Be's de, ku bi awayekî eşkere bêhurmetî bi kultur û ziman û bi taybetî kincên Kurdan dikin, û bi çavekî sivik li welatê xwe de hatine mêzekirin, û li îdareyên hikûmetî û karûbarê rojane da , û herwisa li bazar û meclisan de, sivikatî pê kirine, û dikin jî. Herwisa hewl dane, ku vîna wan, û kesayetiya wan bişkînin, û biherifînin.

Di biyavê kulturî û çandî de, hewl dane, da ku zimanê Kurdî qedexe bikin, û nehêlane ku bi zimanê xwe binivîse û bixwîne, û heya baxive jî.

**Bi baweriya min navçeyên Kirmaşan û Urmiyê li Rojhilata Kurdistanê de, hem, bo dijminên Kurd, û hem jî bo Kurd di biyavê jeopolîtîkî û hilkewt û hêza mirovî de , gellek girîng in**

Îzna nivîsîn û belavkirina rojname û her cure belavokên din bi zimanê Kurdî nedane Kurdan, da ku Kurd ji xwe bîhanî be, û ji ziman û dîroka xwe dûr bikeve, û hest û soza Kurdane ya xwe ji bîr bike. Lê ew siyasetên dijîgelî, ne tenê her bêbandor bûn, belkû berevajî, bûne sebebkar da ku Kurd zêdetir hest bi berpirsatiyê bike, û baweriyê bi xwe bîne, û di hemberî pîlanên neyarên xwe de bisekine, û wan pûç bike.

**Pirs: Çima me nekariye ku di hemberî asîmîlasyona ferhengî ya neteweya xwe de, ku ji serdema Riza şahê Pehlewî ve heya niha bi awayekî çirr dest pê kiriye, siyaseteke rohn me hebe? Bi wateyeke din, çima xebata ferhengî li cem hêzên Kurdî cih û pêgeheke wisa tuneye?**

**Bersiv:** Di serûbendê deshilata Riza şah de, bi vê sedemê ve ku serkut dest pê kiribû, û hêza Kurd gellek çalak nebû,û yan jî eger xebateke Kurdî hebû, tenê di navçeyeke berteng de dima, di vê serûbendê de, li navçeyên başûr û bakûra Rojhilata Kurdistanê de, hizbên Kurdî roleke wisa tê de tunebûn. Lewra karî ku heya astekê pêşrewiyê bike, û heya astekê jî siyasetên xwe bo asîmîlasyona Kurd ber bi pêşve bibe. Lê bi pêkanîna derfeta baş, li serdema Komara Kurdistanê de, û herwisa serdema serkevtina şoreşa gelên Îranê li sala 1357’an de, ew hemû hewla neyarên Kurd bê encam ma, û derket ku hewlên wan heder çûne. Çimkû xortên Kurd karîn li heyama çend salan de, xwe organîze bikin, û di van salan de, di biyavên ferhengî de, bi sedan rojname û pirtûk û belavokên din nivîsandin, û di nava civaka Kurdî de belav kirin, û pêşwaziyeke baş ji hêla xortên Kurd ve ji wan hate kirin, ku ew yek bûne sedema vegeşiyan û bihêzbûna hesta neteweyî û bandor danîn ser biyavê rêkxistin û yekrêziyê di nav Kurd de. Herçend ku rejîmê hewl dabû ku wan dabixe, nivîser û ronakbîran bigrin û wan bixin girtîgehan de, û hukmên dirêjheyam bi ser wan de bisepînin, lê di hemberî hest û soza Kurdan bo xebat ji bo azadî û mafê netewyeî ê Kurd aciz bûn.

Ew dîrok dibêje me, ku Kurd nahele. Serbarê vê ku rastî van hemû êrîşên çandî û siyasî û kulturî bûye, yan ji av û xaka xwe hatine dûrxistin, lê karîne xwe ragrin, rast e ku Kurd negihîştiye mafên xwe ên rewa, lê heya îro rojê xwaragirî kiriye, û berdewam bûye ser xebata bo bidestxistina mafên xwe.

**Pirs: Urmiye û Kirmaşan wekî du bajarên mezin ê Kurd ku di warê jepolîtîkî de, hilkewteke gellek girîng -çi bo Kurd, û çi jî bo Îraniyan-heye, her ji serdema avakirina hikûmeta Pehlewî ve heya digihîje serdema hatina ser kar ya Komara Îslamî ya Îranê, armanceke wan ya dijî mirovî û faşîstî hebûye, da ku ji vê riyê ve pêşiya vegeşîna tevgera Kurdî di van du bajarên girîng de bigrin, û erk û wezîfeya me jî, wekî PDKÎ bona pûçkirina vê siyasetê, û vegeşandina tevgera rizgarîxwaziya gelê me çiye?**

**Bersiv:** Bi baweriya min navçeyên Kirmaşan û Urmiyê li Rojhilata Kurdistanê de, hem bo dijminên Kurd, û hem jî bo Kurd di biyavê jeopolîtîkî û hilkewt û hêza mirovî de, gellekî girîng in. Hêza Kurd dibe di van bajarên mezin de xwe organize bike, û bihêz bike. Bi baweriya min di pêşeroja Îranê de, ew çend bajar li kontrola her aliyekî de bin, dikare hejmoniya xwe bi ser aliyê din de bisepîne. Di rastî de hemû ên ku hatin baskirin, bibandor in, di warê erdnîgarî de jî ew navçe ên Kurdistanê ne, lewra hekî ew parêzgeh di pêşerojê de ser bi deshilata siyasî ya Kurdistanê nebin, hekî Kurd hemû mafên xwe jî bi dest bixe, ew deshilat, parastina wê bizehmet dibe, wekî vê ye ku kesek nivîşkan bibe. Ew kes zindî ye û daxive, lê her du piyên xwe ji dest dane, û nikare ser piyan bisekine. Wate Kurd bi bêy wan parêzgehan nivîşkan e.

**Pirs: Di qonaxa nû ya xebata rizgarîxwaziya Kurdistanê de, -wate rasanêku bajar navenda biryarê ye, çalakên siyasî, ferhengî, medenî ên navxwe, çawa dikarin xwe di rasanê de bibînin?**

**Bersiv**: Li xebata vê carê de, Kurd li sertaserî Kurdistanê tê de beşdar in, û bandora xwe hene, gellek girîng e ku bi hestkirina bi berpirsayetiyê, erka xwe cîbicî bikin, bi bawera min hekî Îlam, Kirmaşan, û Urmiye bi awayekî ektîv rola xwe bilîzin, bi xatircemî ve herwekî ku di du demên dîrokî de hatiye eşkerekirin, wê serkevtinê bo gelê me misoger bikin,ya yekem serdema Komara Kurdistanê, di sala 1324’an de ye. Bi sedema vê ku Îlam û Kirmaşan û li aliyê serê jî Urmiye heya Makûyê têde beşdar nebûn, encama vê ew bû ku xweragiriya desilata Kurdî gellekî lawaz bû. Ya duyem jî di sala 57’an û serdma serkevtina şoreşa gelêb Îranê bû. Dîsan sedemeke lawaziyê ew bû ku ji Kirmaşan û Îlam û Urmiyê ew rola ku diba heban nema. Jiber ku çi di biyavê xak û rûber û hêza mirovî û qaveta aborî de, hekî ser bi deshilata Kurdî bûnaya, ew qas zû têk nedişkest, û di asta navneteweyî de, wê demê wê bandora xwe danîba.

Lewra hewce ye ku xortên Îlam û Kirmaşanê jî tevlî xebatê bibin, û bi awayekî çalakane rola xwe bilîzin, û hêza xwe nîşan bidin, wê dem ye ku em dikarin bêjin şoreşa gelê Kurd giştgîr e, û ji sertaserî Rojhilata Kurdistanê, xelk tê de beşdar e, û hekî wisa nebe, her wekî di bersiva pirsa pêşde min qala wê kir heta hekî di hinek biyavan de jî serkevtin hebin, dîsan jî bêy van herêman, deshilata Kurdî lawaz e.

## Endamên Şêvra Alîkariya Kendawê: Em dixwazin ku bebrirûyê rejîma Îranê bibin



**Wezîrên Karê Derve, yên Navxwe û yên Parastinê, yên ser bi Şêvra Alîkariya Kendawê, di civîna xwe ya herî nû de, ragehandin ku rejîma Îranê di nava karûbarên wan ên navxweyî de destêwerdanê dike, û ew jî dixwazin li dijî vê yekê derkevin.**

Di vê civînê de, rêkarên alîkariyên wî welatî di pirsên ewlehî û herwisa berbirûbûna digel serederiyên hevbeş bi taybetî şêweya rikeberiya digel kiryar û siyasetên Komara Îslamî bas li ser hate kirin.

Di vê civînê de, van welatan bi weşandina daxuyaniyekê ragehandin ku: “Biryar dane li dijî terorîzmê xebatê bikin, û pêşiya detsêwerdanên welatên derve ên wekî Îranê di nava karûbarên navxweyî ên xwe de bigrin”. Wan herwisa ragehandine: “Ew dixwazin ku pêşiya pêkanîna nakokiyan û piştgiriya ji girûpên terorîstî û kiryarên cinayetkarane û piropagendeyên ragehandinê bigrin, ku bûye sedema binpêkariya eşkere ya esla pêkvejiyanê, û mafên navneteweyî û yasayên NY.

Wezîrê Nvxwe ê Behrlynê jî got: “Behrêyn berdewam digel gefên terorîstî ên Îranê dest û penceyan nerm dike”. Hevalbendên Erebistanê bi berdewamî Îranê bi destêwerdana di nava karûbarên xwe de tawanbar kirine, ji aliyekî din ve komara Îslamî van tawanan ret dike.

# Nerîna Lîderan



**Hesen Şerefî:** "Ew operasiyon li ser xaka Herêma Kurdistanê, ji aliyê arteşa welatekî cîran ve bi tu pîvaneke yasayî nikare hêcethilgir be".



Trump: "Berdewambûna li ser lihevkirina etomî digel Îranê, li dijî berjewendiyên neteweyî ên Amerîkayê ye".



Nicolas Dupont-Aignan: "Piştîvaniyê ji dewleta Kurdî dikim".



Elî Rebî`î : "Bi pêkanîna yek milyon derfetên kar jî, nirxa bêkariyê naguhere" .

## Encumena bajarê Mihemdyarê dest ji karê xwe berda

**Tewahiya endamên Encumena bajarê Mihemedyar a ser bi Bexşa Navendî a bajarê Nexede ya ser bi parêzgeha Urmiyê dest ji karên xwe berdan.**



Li gorî nûçeya gehiştî destê Ajansa Kurdpa yê, roja Yekşemî 3'ê Banemer a sala 1396'an a Rojî, endamên Encumena Bajarê Mihemdyarê bi sedema kêmkarî û kêmasiyên rayedarên hikûmetê û pêranegehiştina bi pirsa lehiya di çend rojên derbazbûyî de, dest ji karê xwe berdan.

Endamên Encumena Bajarê Mihemedyarê ragehandine ku piştî hatina lehiyê li bajarê Mihemedyarê û çaresernekirina pirsgirêkên xelkê ji aliyê karbidestên hikûmetî ve û nerazîbûna xelkê, nameya destjikar berdana wan hatiye nivîsnadin.

Di beşek namê de hatiye ku, di dema serdana Dr.Pizişkiyan de bo bajarê wan, xelkê kêmasî û kêmkariyên karbidestên hikûmetê li herêma xwe, bi tundî rexne kirine.

Ji aliyê din ve yek ji endamên Encumena Bajarê Mihemdediyarê di hevpeyvîna digel malpera "Sildûz"ê de dibêje ku; Beşek ji berbijêrên Encumena Bajar bi sedema mifahwergirtina ji keş û hewaya hilbijartinê, rê nedan ku kirîza rabûna lehiyê li Mihemedyarê bi aramî bê çareserkirin.

Ev endamê encumena Bajarê Mihemdeyarê destjikarberdana her 5 endamên encumenê vegerand ser bêrêzîkirina hejmarek ji berbijêran.

Hatiye ragehandin ku xisarên di encama hatina baran û rabûna lehiyê di heftiya derbazbûyî de li Mihemedyarê, 4 milyard û 770 milyon û 800 hizar Tûmen hatiye texmînkirin

## Trump: Berdewambûna li ser lihevkirina etomî digel Îranê, li dijî berjewendiyên neteweyî ên Amerîkayê ye

**Trump serkomarê Amerîkayê, bi boneya 100'emîn roja serkomariya xwe, li nav koma alîgirên xwe de, êrîşî ser lihevkirina etomî kir.**



Wî ragehand ku her çi li dijî berjewendiyên Amerîkayê be, emê ji nav bibin. Wî bas ji dewleta Obama jî kir, û ragehand ku Dewleta Obama mîrateke gellek tevlîhev û bêserûber ji xwe bi cih hêla.

Wî cardin qewl da alîgirên xwe ku ewê şûreya sînorî ya Mekzîkê ava bike, û cîhan jî êdî têghiştiye, em nahêlin sînorên me vekirî bimînin, û bi hezaran koçberên ne yasayî bêne nava xaka welatê me.

Wî digel vê ku bas ji vegerandina Amerîkayê bo mezinahiya wê ya caran kir, got ku 29 pirojeyên yasyaî di rojên bê de, wê îmza bike ku bêsabiqe (pêşîne) ne.

Wî bas ji pêkanîna 100 hezar derfetên kar jî kir, û li dijî ragehandinan jî got ku ragehandin piropagendeyên nerast belav dikin.

# Pîroze Seyfûrî:

## “Vekirina TISHK TV, ji min re bîreweriya herî xweş bû”.

**H: Arif Vêlzî**

Di sedsala derbazbûyî de hertim mekteba Demokrat, mektebek bihêz bûye ku, çendîn nifş têde hatine perwerdekirin û di pêşeroja gelê xwe de û xebata bona bidestxistina mafên gelê xwe de, xwedî rol û bandorekî bihêz bûye. Lewra perwerdeya di nava PDKÎ karek weha kiriye ku hemû zarok û bitaybetî dayîk û bab şanaziyê bi perwerdeya Hizba Demokrat, û piştre bi serkevtinên zarokên xwe bikin ku di vê mektebê de hatine perwerdekirin.



yek ji wan jinên Kurd, ku di vê mektebê de perwerde bûye, Pîroze Seyfûrî keça Mihyedîn e. Ew di hevpeyvîna xwe ya bi Agirî re derheq nasyariya xwe digel PDKÎ weha dibêje: “Ez di zivistana sala 1974an de, li gundê “Koykî Mîlsef” li navçeya Zehaw a ser bi şaristana Serpêla Zehaw ji dayîk bûme. “Min li dewrana 10-12 saliyê de hizb nas kiriye. Jiber ku xizm û kesûkarên min pêşmerge bûn, û em di kempa Rûmadiyê de bûn, û me di merasimên hizbê de beşdarî dikirin. Di roja 27ê Xakelêweya sala 1371an de, min digel Mihemed Seyfûrî ku kurapê min bû, û wê demê 8 sal bû ku pêşmerge bû, zewac kir. Wê demê heya meha Xermanan a sala 1377an, hevjînê min salê tenê 40 heya 45 rojan dikarî bê kempê û me bibîne, û piştre vedigeriya ser kar û erka xwe ya pêşmergatiyê. Di sala 1377an de mala me hate nav hizbê, û em di kempa Azadiyê de cihgir bûn. Berhema jiyana me ya hevbeş jî keç û kurek in. Zana li roja 01.09.1373an di kempa Romadiyê de ji dayîk bûye, û Zinwêr jî di roja 27.07.1379an de, li nav hizbê de ji dayîk bûye.



**Heya meha Xemanan a sala 1377’an, hevjînê min salê tenê 40 heya 45 rojan dikarî bê kempê û me bibîne, û piştre vedigeriya ser kar û erka xwe ya pêşmergatiyê**

Di sala 1372an de, ez li Romadiyê bûm endama Yekîtiya Jinên Demokrat ên Kurdistana Îranê,û di payîza sala 1377an de jî, ez bûme endama PDKÎ. Niha jî ez endma Yekîtiya Jinan û Teşkîlata Eşkere ya PDKÎ me, û şanaziyê jî bi vê endambûna xwe dikim”.

Navbirî derheq çavnihêriya xwe ji PDKÎ weha dibêje: “Ez hêvî dikim ku hizb bo pêgehandin û perwerdehiya endamên xwe xemsar nebe,û bikare wan wisa perwerde bike, ku ew bibin zimanê PDKÎ û siyasetên hizba xwe bi başî bibin nava civatên xelkê de. Herwisa ez hêvî dikim ku hevjînê min heya ser emegdar be bi rê û şopa şehîdan, û vê riyê bidomîne û bi hêviya xwedê, wê her wisa jî be”.



Pîroze Seyfûrî derheq yek ji bîreweriyên xwe ên herî xweş jî weha dibêje: “Vekirina Tishk TV ji min re bîreweriya herî xweş bû. Jiber ku wê demê bi hezaran kesî rondikên kêfxweşiyê barandin. Bi hezaran malbatên şehîdan dilşa bûn, û dayîkên şehîdan digotin em qurbana TISHK TVê bin, eva berhema xwîna kurê me ye,û bi hezaran hevjîn û keç û jinên şehîdan, ken û girnijînê li ser lêvên wan sema kir, û pîrozbahî ji hevdu kirin, û bi sedan hezar xortên têhniyê rastiyan, bi vekirina vê televizyonê, gotin tu xêr hatî ey destke xûşka Radyo Dengê Kurdistana Îranê”.

Navbirî derheq bîreweriya herî nexweş ya jiyana nav PDKÎ de jî dibêje ku ew veqetiyana ku di nava PDKÎ de, di sala 1385an de çê bû, bîreweriyeke gellek nexweş bû, jiber ku dijminên me gellek pê kêfxweş bûn, û civatên xelkê Kurdistanê jî bi vê bûyerê gellek xembar bûn.

Di dawiyê de Pîroze Seyfûrî weha bas ji peyama xwe ji bo keç û jinên Kurdistanê dike:

“Ez xwe ji vê hindê biçûktir dizanim ku min peyam hebe, lê di bersiva pirsa we de dibêjim ku hêviya min ew e ku keç û jinên Kurdistanê xwe pê bigehînin, û bi başî perwerdehiyê bibînin, û xwe dûr ragirin ji nakokiyan û kultura xwexweriyê”.

## Zanist di bin siya rejîma Îranê de, lawaz bûye



**Ast û pileya zanistê di Îranê de, bi sedema girîngîpênedana berpirsyarên rejîma Îranê bi perwerde û hînkirinê ber bi jinavçûnê ve diçe.**

Nûçegihaniyên rejîma Îranê ji zarê Emîr Elî Seyfedîn serokê Navenda Lêkolîna Fenaweriyên Nerm li zanîngeha Tehranê de belav kiriye, ku di biyavê vegeşîna zanistê di welat de, em paşve vedigerin, û asta zanistê di vî welatî de, mijûl e ku ji nav diçe.

Wî berpirsê rejîmê herwisa bas ji vê jî kiriye, ku em di biyavê zanistê de, ji cîhanê û heya welatên navçeyê jî paş in, û ew yek jî di demekê de ye, ku zanistên cîhanê roj bi roj kevn dibin, û zanistên nû têne gorê.

Sebarê vê yekê ku berpirsyarên rejîma Îranê, bangewaza jêhelbirina asta zanistê li Îranê dikin, û soza vê yekê didan, ku heya sala 2016’an Îran dibe yek ji bihêztirîn welatên zanistî ên cîhanê, lê vî welatî daketina bo asta %8.5 ezmûn kiriye.

Wezareta Zanist a rejîma Îranê bi mifahwergirtina ji amara salên borî li pêwendî digel jêhelbirina asta zanistê li zakoyên Îranê, amarên nerast belav kirine, eva jî di demekê de ye ku amarên navenda “Êskopos” û “Tamson Royterz”, ku du navendên bawerpêkirî ên cîhanê ne, bas ji vê dikin, ku asta zanistî ya Îranê di sala 2015’an de, gihaye %8.5.

Ew yek hevdem e digel jêhelçûna pileya zanistî ya welatên wekî Erebistan û Tirkiyê bi rêjeya %12.61.

Li gora hinek amarên fermî jî, pileya Îranê hevtayê pileya welatên wekî Kinyayê ye, û di navçeya Rojhilata Nawerast de, pileya 13 heye, ku li çav sala 2011, %84.3 kêm kiriye.

Li gora dawî xişteyan di vê derheqê de, eşkere dibe ku rewşa zanistê li Îranê di serdema deshilata Ehmedînijad de, gellek ji dewleta 11’emîn baştir bûye.

## “Bint El-rafideyn”: Jinên reviyayî ji destê DAÎŞ’ê digel destdirêjiyên cinsî bebirirû dibin



**Saziyeke Îraqî bi navê “Bint El-rafideyn” çalak di biyavê mafê jinan de, ew yek eşkere kiriye ku hinek ji berpirsên ku çavdêriyê dikin bi ser alîkariyên mirovdostane de, bi mifahwergirtina ji rewşa xirab, û kêmiya hewcehiyên destpêkî ku jinên reviyayî ji destê DAÎŞ’ê digel de berbirû ne, dest bi êrîşên cinsî li dijî wan dikin.**

Li gora rapora El-erebiye, saziya “Bint El-rafideyn” ku di warê mafê jinan de li Îraqê de çalakiyan dike, Şemiyê 29’ê Nîsanê raporek di vê derheqê de belav kir. Ew saziya kar li ser zext û zoriya li ser jinên reviyayî ji herêmên di bin deshilata DAÎŞ’ê de dike.

Saziya “Bint El-rafideyn” di rapora xwe de aniye, ku ew jinên reviyayî ji herêmên di bin deshilata DAÎŞ’ê de, di dema belavkirina alîkariyên mirovdostane de, ji aliyê hinek ji berpirsyarên kempan ve, rastî destdirêjiyê tên.

Ew saziya herwisa pêdagirî dike ku ew jinên reviyayî nikarin ji tirsê jidestdana para xwe (pişka xwe) li dijî kesên destdiriyê dikin ser wan, bisekinn.

Li gora vê raporê, ew jinên ku bi sedema rewşa şer, derbiderî, ya mirovrevandinê, ji aliyê milîşan û girûpên girêdayî DAÎŞ’ê ve serperestên xwe ji dest dane, zêdetir ji ên din, di bin zextê de ne, bi awayekî ku rastî gellek zehmetiyan tên.

## Wezîrê Kar: Bi pêkanîna yek milyon derfetên kar jî, nirxa bêkariyê naguhere

**Elî Rebî`î Wezîrê Kar û Rehetiya Civakî, hejmara bêkaran sê milyon û 200 hezar kes ragehand, lê navenda lêkolîna meclisê hejmara bêkaran şeş heya heft milyon kes texmîn kiriye.**

Meclisa Şêvra Îslamiya Îranê bona lêkolîna li ser mijara bêkariyê kombûneke ne asayî pêk anî, û Wezîrê û navenda lêkolînên meclisê di vê derheqê de ragehandin, ku hekî her sal yek milyon derfeta kar bê pêkanîn jî, heya sala 1400`ê nirxa bêkariyê, wê her di cihê xwe de bimîne.

Li ser bingeha vê raporê Wezîrê Kar herwisa gotiye ku hekî her sal yek milyon derfetên kar jî bê pêkanîn, heya sala 1400`ê nirxa bêkariyê kêm nabe.

Hesen Rûhanî serkomarê Îranê, piştî peyama newrozî ya Xamineyî îsal ragehand ku her sal 800 hezar kesên ku ders bi dawî anîne, tevlî bazar kar dibin, û hekî her sal 700 hezar derfetên kar jî bêne pêkanîn, dîsan jî 500 hezar bêkar her zêde dibin.

Elî Rebî`î Wezîrê Kar û Rehetiya Civakî ragehandiye ku di dewleta Ehmedînijad de, herî zêde salê tenê 75 hezar derfetên kar hatine pêkanîn.

Berpirsyarên dewleta Ehmedînijad lê berî niha ragehandibûn, ku di dewleta wî de heşt milyon derfetên kar hatine pêkanîn.

Xirabiya rewşa aborî û zêdebûna asta bêkariyê di demekê de ye, ku hinek ji berpirsyaran bas ji vê dikin ku ew dikarin di pêşerojê de yaraneyê zêde bikin.

Her di vê derheqê de, karnasekî pirsên aborî bi navê Se`îd Lêylaz dibêje, di van hefteyên dawiyê de, hinek qewl derheq zêdekirina yaraneyê bi xelkê têne dayîn, eva di demekê de ye, ku dana yaraneyê bi vî awayî di çi welatekî din de, bi rê ve naçe, jiber ku ew yek asta teweromê (helawsanê) jêhel dibe. Wî herwisa ragehandiye ku dahata petrola me, ew qas li serê nine, ku em bikarin yaraneyê zêde bikin.

# Dîlanar keç û xortan fêrî strangotinê dike

**Stranbêj Dîlanar Yildiz ragihand, ew dê ji bo keç û xortan navendeke perwerdehiya strangotinê veke.**



Dîlanar Yildiz ji Rûdawê re diyar kir, ku dixwaze li Başûrê Kurdistanê navendeke perwerdehiyê veke û got: “Ji bo stranbêjên nû, yan jî ji bo kesên ku dixwazin têkevin qada staranan, bi awayekî zanistî emê perwerdeya wê pêşkêş bikin.”

Dîlanar amaje bi wê yekê kir, ku niha li ser straneke kurdiya soranî dixebite û got: “Xwediyê gotin û muzîka vê stranê Erdewan Biradostî ye. Xebatên kişandina klîba vê stranê jî berdewam in.”

Dîlanar heta niha li Başûrê Kurdistanê gelek konsert dane, û destnîşan kir ku ewê li Almanyayê 2 konsertan bide.

# Ciwan Haco klîpa “Gotin Sar dibin” belav kir

**Hunermendê navdarê Kurd Ciwan Haco, nûtirîn vîdyoklîpa xwe ya bi navê “Gotin Sar Dibin” belav kir.**



Gotin û melodiya vê stranê yên Ciwan Haco bi xwe ne.

Derhêneriya wê video klîpa nû ya Ciwan Haco, ji aliyê Ayhan Êvcî ve hatiye kirin, û li Ewropayê hatiye çêkirin.

Tişta balkêş ev e, ku dîmenên klîpa nû ya Ciwan Haco bi kamêraya mobayla ji curê Iphone hatine kişandin.

Ciwan Haco di sala 1957 li bajarê Tirbespiyê li Rojavayê Kurdistanê ji dayîk bûye, ji 17 saliya xwe ve stranan dibêje.

Haco di sala 1979 de ji Kurdistanê derket û çû Ewropayê.

Hunermendê navdarê Kurd, Ciwan Haco niha 16 album çêkirine û di fîlma Huner Selîm ya bi navê Dol de jî, rol lîstiye, ku di sala 2007 de hatibû çêkirin

# Xelata hunerî ya Mamlê ya 2017ê didin Mezher Xaliqî

**Xelata rewşenbîrî û hunerî ya Mamlê yê îsal dê pêşkeşî hunermend Mezher Xaliqî bê kirin. Rêwresma xelatwergirtinê jî dê di dawiya meha Gulanê de li Stokholmê bi rê ve biçe.**



Malbenda Rewşenbîrî û Hunerî ya Mihemedê Mamlê ragihand, ku dê xelata 2017ê ya rewşenbîrî û hunerî ya Mamlê, pêşkeşê hunermend Mezher Xaliqî bikin.

Malbenda Rewşenbîrî û Hunerî ya Mihemed Mamlî ev yek jî eşkere kir, ku îsal jiber hindek sedeman nekarîn rêwresma pêşkeşkirina xeletê di dema xwe de saz bikin.

Biryare roja 21ê Gulanê, di rêwresmeke taybet de, li paytexta Swêdê Stokholmê, bi amadebûna hunermend û nivîskaran, xelat bigihe destê Mezher Xaliqî.

Beriya niha hunermend Nasir Rezazî, Ezîz Şaroxî, Qale Mêre, Ebas Kemendî û Zozan Guler ev xelat wergirtibûn.

Navenda Hunerî ya Mamlê sala 2006’an li Norveçê û di dehemîn salvegera wefata hunermendê kurd Mihemed Mamlê de hatibû avakirin.

# Gotinên Navdaran



A: FIRAT CEWERÎ

Jinek her tiştî efû dike, bi tenê redkirina xwe efû nake.
**Alfred de Musset**

Efûkirin yê bi hêz bihêztir dike.
**Publilius Syrus**

Efûkirin zekata biserketinê ye.
**Hz. Emer**

Her dar ji mêwa xwe tê zanîn.
**încîl**

Darên ku dereng digihên darên herî bi ber in.
**Moliere**

Yê ku xwe bispêre dareke baş bêî sî namîne.
**George Harbert**

Xemkişandin ji mirinê bêtir cesaretê dixwaze.
**Napoleon**

Ger nan hebe her xem tê kişandin.
**Cervantes**

Xorto wilo bixebite: An bi xwe çêke, an arîkariya ewan bike ko çêdikin, ava dikin.

Di dinyayê de tu tişt nîne ko tekûz bit. Di her tiştî de, nemaze di karên nû destpêkirî de, pirîcar, kêmanî hene. Heke te kêmanî dîtin, hema dirêjî wan meke. Lê bixebite ko tu bikevî nav wan, arîkariya daniyan bikî û wan kêmaniyan biedilînî. Hilweşandina stûnekê hêsanî ye. Huner di rastkirina stûna xwêl de ye.
**Celadet Alî Bedir-Xan**

## Çêbûn û pêşketina zimên

Beşa 2

Hemû kevirên nivîsandî yên dema Hexamenişiyan bi xetên bizmarî hatine nivîsîn ku alfabeya wan 36 tîp in. Diyakonof di perawa "Dîroka med" de dibêje: Pêkanîn û şêwenivîsîna kevirên nivîsandî yên parsiya kevin bi taybetî dema ku mirov wan li çend beşan par dike derdikeve holê ku wan alfabeya xwe ji babîl û îlamiyan wernegirtiye, dibe ku wan ji ûrartûyan xwestibe. Ev yek jî nîşanî me dide ku parsiyan tîpên bizmarî ji medan wergirtine. Diyar e ku zimanê medan bandoreke mezin li ser zimanê parsî kiriye û bi vê yekê re mirov dikare bibêje ku wan alfabeya xwe jî ji medan wergirtiye. Lê heta niha kevirekî ku bi tîpên medî hatibe nivîsîn peyda nebûye ku vê rastiyê derxîne holê.

Zimanên cîhanê

Komên zimanan

Zimanên hind û ewropî
Zimanên Hind-Ewrupî ku li Asiya Navîn heya peravên Rojavayê Ewrûpa ye,ev beşa di hundirê xwe da dibê du perçe.

Malbata rojhilatî

Malbata rojhilatî ku bi navê Zimanên hind û arî tên nasîn, ev perçeya di hindirê xwe da jî dibe gelek zimanên bingehîn, wek Mîtanî, Sinsikirêtî, Exmînî (Farisiya despêkê), Medî (Kurdî) ji zimanên herî kevin di Cîhanê da ye. Zimanê Kurdî beşeke ji malbata zimanên Arî ye.

Malbata Rojavayî

Malbata Rojavayî ku gelek caran bi navê kentum tê naskirin, ev perçeya di nav gelê Asiya, ên ji nejada Hind û Ewropî ne, li rex gelên Upupî ji bilî zimanê finlendî, macarî û zimanê baskî. Her wiha zimanê rojavayî di hindir xweda dibe gelek beş:

•zimanên germanî: (elmanî, îngilîzî, danimarkî, filenmîkî "beljêkî", holendî û zimanên îskendenavî.)
•zimanên slavî: (rûsî, polendî, çêkî, slovakî, yûguslavî, hwd.)
•zimanên latînî an "romanî": (îtalî, fransî, spanî, portekîzî, hwd.)
•zimanê yûnanî: ev ziman zarayekî bi serê xwe ye,lê belê, her wiha zimanê ermenî û elbanî jî, ji zimanê Hind û Ewropî ne.
•zimanên kilêtî: di nav de zimanê herî girînig zimanê Îrlendî ye.

Ziman malbata Efrîqa û Asyayî
Zimanên Samî

Beşê zimanê gelên ku di nav herdû çeman de û Çola Erebistanê û Bakurê Afrikiya cîh digrin, dibêjin peyva "Samî" ji navê Sam kurê hezretî Nûh tê.

Gelek taybetmendêyên zimanên Samî ên cuda hene, mînak: gelek tîp ên taybet hene ku tenê di wan de heye wek (ض ط -ح) her wiha piranê zimanê Samî, demê nivîsandinêda ji rast berve çep diçe;dîsa jî gelek tîpên ku di zimanên Arî de hene , gelê Samî nikarê wan tîpana bikar bînin,wek " P- V- Ç-J- G...hwd.
Di hindir zimanên Samî de gelek ziman û Zarayên cur bi cur hene wek:

•Perçeyê Başurî: zimanê Erebî ê kevin bi hemu devok û zaravayên kevnar,wek "Hemîrî, Qitbabî, Semudî, Sebiayî" , Erebiya bakurî ya nû û zimanê Athyûbî "Hebeşî".
•Perçeyê bakurî: ev perçeya bi piranî li kenara Derya Spî û Mezopotamiya tê bi karanîn.wek " Aramî, Siryanî û Sabiî"
•Perçeyê rojavayî "Kananî": Fênîqî, Abrî "israîlî".
•Perçeyê rojhilatî: Ekadî, Babîlî û Asûrî.
Zimanên ûral û Sîtkî
Ev beşa di hindirê xwe da dibe dû beş:
•Zimanên ûralî: Ê ku li derdora çiyayên Oralê tê dîtin wek Filendî, Estonî û Hingarî "mecerî".
•Altayî: Di Asiya Naverastde belav dibe, wek Tirkî, Mengolî, Tinokosî û Minanşwî.
Zimanên Asiya dûrîn
Tipîtî- zimanên Asiya dûrîn -"rojhilata dûr"( zimanên Tipîtî, Çînî, Taylandî û Bormayî....hwd.).
Heya niha bi sedan ziman hene, hîn baş nehatine lêkolîn kirin; lewra bi şewayekî rêkûpêk nahatine dabeşkirin, ne diyare ku ev zimanana dikevine kîjan beşî yan kîjan perçeyî. Nîmunê vê yekê jî li Cîhanê gelekin, wek zimanên gelek nejad û Qebîleyên Efrêqî û Ostiralî.
Rûpelên girêdayî:
•Zimanê Kurdî
•Kurmancî
•Soranî
•Dimillî
•Lorî
Zimanên destkirî
Ew ziman bi mibesta pêwendî yên navnetewî ya gelên dinyayê bi destê mirov hatine çêkirin. Nimûneya bi navbanga wan zimanan Esperanto û Ido ne.

## Tiştonek



A: Mahir Berwarî

- Şirînok li darînok, darînok li guhbelok, guhbelok birêket, pêpehnok bidûvket. (* ker, barê tirî û karwanî)
Şirînê şarî, hinginê darî, guhbelê bi rê da, pê palê bi dûv da.

- Êkî ditena, bi pênc şahida ve. (* taret, kevçik û tilên destî)
Êk di mirovî dinit, pênc şahidin.

- Bêrî 4 kiç hene, her kiçekê 6 kon hene, her konekê merrek heye. (* kon û bizmarên nalên dewar)

- Ev çî ye? Sibe çar e, nîvru du ye, êvarî sê ye.

(* zaro bi çar lepa diçit, dibe genc bi du ya, dibe pîr bi du pêya û gupalekî), Spêdê li ser çara dicit, nîvru li ser du ya, êvarî li ser sê ya.

- Li çerxî da carek dihêt, di salê da çi car nahêt, di deqîqê da, du car dihêt. (* Pîta Qafê) 28 . Ev nivîsên di kivana da û biçûk bersivinên wanin.

- Ez çume girê delal, tê da hebûn çar kaniyên zelal, du yên sor, du yên tal. (* ser, 2 çav, 2 kunên guhî)

- Du qulê roviya, du çirê neviya, aşek bê av di bin da geriya? (* poz/difin, çav, dev)

Têdîtin: Amadekar destkariya devoka metelokan nekiriye

**Xwendevanên hêja! Hûn dikarin bersiva tiştonekan bi riya E-Maila Agiri2003@gmal.com ji me re bişînin**



# Agirî

◆ Rojnameya “Agirî” di van malperên jêrên de bixwînin:
◆ www.Kurdistanmedia.com
◆ www.Agirimedia.org
◆ rojnamaagiri@gmail.com
◆ www.facebook.com/Agirikirmanji

Navnîşana derveyî welat: AFKB.P. 102- 75623 ParisCEDEX 13 –FRANCE E - Mail: Agiri2003@gmail.com Hejmar (301)


## Serdozgerê giştî berevaniyê ji fîlterînga pêwendiya bideng a Telegramê dike




**Serdozgerê giştî berevaniyê ji fîlterînga pêwendiya bideng a Telegramê dike, û di vê derheqê de ragehandiye ku hemû dezgehên Îtila’atî û ewlekariyê ên Îranê, vê “application” a Telegramê li dijî ewlehiya neteweyî dihesibînin, û aliyê kêm heya piştî hilbijartinan, wê ew biryar di cihê xwe de be.**

Li gora rapora nûçegihaniya ISNA’yê Muntezirî Serdozgerê giştî ê rejîma Îranê, di gotûbêjekê de, bi televîzyona dewletî ya Îranê ragehand: “Sîstema pêwendiya bideng lêkolîn û behs li ser hate kirin, û hemû dezgehên Îtila’atî û emniyetî û întizamî, ragehandin ku ew sîstem li dijî ewlehiya navxweyî ya welat e”.

Li gora gotina navbirî, torên derveyî, ji vê rewşê mifaha herî zêde werdigrin, bona derbelêdana li Komara Îslamî ya Îranê. Herwisa me xwast ku em pêşiya têkdana silametiya hilbijartinan ji riya vê îmkana Telegramê ve bigrin.

Îmkana pêwendiya bideng ya Telegramê tenê du rojan, piştî çalakbûnê,bi biryara Dezgeha Dadwerî di roja 27’ê Xakelêweyê de hate sînordarkirin. Ew kiryar û biryara Dezgeha Dadweriyê nerazîbûna Elî Mutehirî û Mes’ûd Pizişkiyan du cihgirên serokê meclisê li pey xwe hebû, lê Husêyn Nicat cihgirê Saziya Îtila’ata Spaha Pasdaran berevanî kir ji fîlterînga pêwendiya bideng ya Telegramê,û got ku ew îmkana Telegramê, nahê kontrolkirin, û dikare bi zirara ewlehiya welat be.

## Saziya Jîngehparêziyê, wê beşek ji derdora gola Urmiyê bike parka wehş



**Îsa Kelanter birêveberê Navenda Vejiyandina Gola Urmiyê ragehand ku 1030 km di beşa başûra gola Urmiyê bibe parka wehş.**

Li gora nûçegihaniyan, biryara avakirina parkek wehş li beşeke vê golê de, vedigere bo du salan berî niha. Wê demê berpirsyarên pêwendîdar di parêzgeha Urmiyê de, ragehandibûn ku rûberek bi qasî 1030 km ji vê golê di halê jinavçûnê de ye, û nahê çêkirin.

Ava gola Urmiyê ji nêzî sala 1376’ê ve hêdî-hêdî kêm kir, û di salên 1393 û 94’ê de gihîşte asta xwe ya herî kêm. Niha jî derheq cardin zêdebûna û vejiyandina gola Urmiyê gotinên nakok û dij bi hev têne belavkirin.

Çend roj berî niha cihgirê Wezîrê Enirjiyê bas ji xirabiya rewşa gola Urmiyê kiribû, û ragehandibû ku heya 7 salên din, hekî ava wê bigihîje 14 milyard metrên muke’eb, wê demê em dikarin bas ji başbûna rewşa gola Urmiyê bikin. Ji aliyekî din ve seroka Saziya Parastina Jîngehê Me’sûme Ibtikar ragehandibû tevî vê ku îsal baranbarîn kêm bû, lê Gola Urmiyê vejiyaye. Li gora ragehanidna Naveda Vejiyandina Gola Urmiyê di roja 5’ê Banemerê de, asta ava gola Urmiyê hate têstkirin, û derket ku li çav sala borî 16 cm kêm bûye.

Di meha Rêbendana sala borî de, birêveberê ofîsa parêzgehê, ya navenda vejiyandina gola Urmiyê, ragehandibû ku tevî kêmiya barînê, di sala 1395`an de, teraza ava gola Urmiyê li gora sala berê, 12 cm zêde bûye.

Axavtinên cur bi cur û dij bi yek, ên berpirsyarên pêwendîdar ên rejîmê, derheq vejiyandina gola Urmiyê, bûye sedema ku xelk zanyariyên rast dest wan nekevin, û êdî baweriyê bi ragehandin û daxuyaniyên wan nekin.

## Li Îranê 90 nûciwan li benda îdamê ne, û “NY” daxwaza sekinandina cezaya wan dike

**Li Îran a di bin deshilata rejîma Îslamî ya Îranê de, 90 nûciwan li benda îdamê ne, û di hember de jî rêkxistina Mafê Mirovan a ser bi “NY” daxwazê ji rejîma Îslamî ya Îranê dike ku, îdamkirina nûciwanên di bin 18 saliyê de bide sekinandin.**

Malpera nûçegihaniya ser bi “NY” ragehand ku, roja Înê 28’ê Nîsana 2017’an, çend rayedarên mafê mirovan ku ser bi “NY” ne eşkere kirine ku, bi aliyê kêm ve 90 kes di Îranê de li benda cezaya îdamê ne ku, di dema encamdana tawana xwe de di bin temenê 18 saliyê de bûne.

Di nava wan nûciwanan de 2 girtî hene ku di dema encamdana tawana xwe de di temenê 17 û 15 saliyê de bûne, û piştî diyarîkirina roja birêvebirina cezaya wan, niha li benda îdamê ne. Hatiye ragehandin ku “Binyam Dawît” ê serokê komîteya zarokan yê ser bi “NY” û “Esma Cehangîrî” rêportêra taybet bi mafê mirovan di Îranê de, û “Egnês Kalamard” rêportêrê taybet bi îdamên bê dadgehîkirin ragehandin ku; “Cezaya îdama wan kesan gerek bilez bê sekinandin û bi giştî cezaya wan bê hiloşandin û kêmkirin, lewra em daxwazê ji Îranê dikin ku îdamkirina zarokan bide sekinandin”.

Eva di demekî de ye ku “Sadiq Larîcanî” yê serokê dezgeha dadweriya rejîmê ragehand ku, eva direvek eşkere ye hekî kesek bêje di Îranê de zarok têne îdamkirin. Hevdem di beşek din a gotinên xwe de dibêje ku, êdî çi sedemek namîne dema nûciwanek di temenê 17 saliyê de cînayetekî encam dide û dema temenê wî digîje 25 saliyê, nehê îdamkirin.

Lê çalakên mafê zarokan liser vê baweriyê ne ku, eva îdamkirina zaroka ne, jiber ku ew dibêjin, temenê ku zarok tawanê têde encam dide girîng e, ne temenê birêvebirina cezaya îdamê.

Ew çalakên mafên mirov û mafên zarokan liser vê baweriyê ne ku, rejîma Îranê serbarê wajûkirinê, lê yasayên navnetewî binpê dike.

